Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 35
15'ê Mar 2006
Buha: 150 Tûmen

agirî

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne



Corc Buş, Serok Komarê Amerîka:

# DESTÊ ÎRANÊ Dİ BÛYERÊN HİNDURÊ ÎRAQÊ DE HEYE



Roja 11.02.2006'an, Corc Buş, Serokê Amerîkayê, dewleta Îranê bi maytêkirin di kar û barên Îraqê û dest hebûn di wan bûyerên tund û tûj ku di Îraqê de diqewimin, gunehbar kir.

Serok Komarê Amerîkayê, piştî dawî hatina civîna derheq Îraqê di Koşka Sipî de bo rojnamevanan axivî û got: "Dema ku Îran dixebite kar li ser pirosêsa siyasî a Îraqê û rewşa tenahiya wî welatî bike û bixwaze nifûza xwe di pêxema aloziyên zêdetir di Îraqê de zêde bike, em bi van radigehînin ku em ji vê zirûfê nerazî û vêzarin.

Her wisa Buş anî ziman ku: "Ez daxwazê ji dewletên cîran yên Îraqê dikim ku rêyê bi Îraqê bidin bila demokrasî di wî welatî de geşe bike û her wiha eva li ser Îran û Sûriyê jî tê cî bi cî kirin.

**Jêder: Malpera "Peyamnêr"**

## Meşa xelkê Pîranşarê bi dijî cinayetên rejîmê

Demjimêr 11'ê sibêdehiya roja şemî 20.12.1384(11.03.2006)'an hêzên rejîmê li ciheké bi navê "Petik" ku dikeve ser rêya Hacî Omeranê, destdirêjiyê ji kesekê bi navê **Fayiq Recebî**, xelkê Şêxan a ser bi bajarê Şino û rûniştiyê Pîranşarê dikin û di encama teqeya hêzên dijî gelî de, navbirî canê xwe ji dest dide.

Xelkê qehreman û netirs yê Pîranşarê piştînêvroya wê rojê bi zorî meytê navbirî ji hêzên rejîmê standin û meşeke nerazîbûnê bi pişikdariya hezaran kesî bi dijî wê cinayeta hov a rejîmê lidarxistin. Xwenîşanderan bi gotina dirûşmên dijî rejîmê êrîş kirne ser du Pasgehên hêzên rejîmê û sê tirombêlên van jî şewitandun. Di ancama vê meşê de hêzên rejîmê teqe ji xwepêşanderan kirin û 10 kes ji xelkê wêzar bûyî ji rejîma dijî gelî birîndar kirin.

Siloganên vê meşê pêkhatibûn ji: **Qasimlo Qasimlo rêya te dirêjî heye, bihiloşe Rejîma Komara Îslamî, bijî Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**.

## Peyama Kofî Enan Bi Boneya Roja Cîhanî A Jinan



R. 8

Dr. Roya Tilûî, Çalakvana mafê Jinan û Xebatkara mafên mirovan li Kurdistanê, di hevpeyvîneke taybet bi Agirî re:

## Ez dê vegerime welat, lê tevî hemû Pêşmerge û şoreşvanên welatê xwe yê serfiraz

Beşa 2 û dawî



### Daxuyaniyek ji Sekretariya Komîteya Navendî ya PDK Îranê



Civîna aliyên Kurdî yên Kurdistana Îranê ji bo bas û guherîna bîr û fikran derheq pêkanîna eniya Kurdî bi bêy beşdariya Komeleya Şoreşvan ya Zehmetkêşên Kurdistanê û Rêxistina Kurdistanî ya Partiya Komonîst ya Îranê(Komele) hate lidarxistin....

R. 2

### Agehdariya Komîsyona Rêxistina Nepenî ya PDK Îranê ji bo xelkê Azadîxwaz yê Pîranşarê



Divêt xelkê bi şan û şeref yê Pîranşarê ji kompiloyên dujmin agedar bin û rêyê nedin ku ziyan û xisar bigihîje dezgeh, sazî û cihên xizmetkirinê yên giştî ku rejîm bi hêceta vê çendê serkut û êrîşa bêrehmane ya xwe bo ser selkê xurtir bimeşîe.

R. 2

### Fazeke nû ji xebata mafxwazane ya gelê me



xebat û tekoşîna mafxwazane ya neteweya me di Rojhilata Kurdistanê xwe avêtiyê nava fazeke nû

R. 2- 3

### Ji dayîk serdestiyê heta ...



jin ji bo rizgarbûn ji hemû zext û givaşên ruhî, siyasî, aborî, civakî û çandî pêwîstî bi saziyên nedewletî yên berevankarê mafê jinan hene...

R. 7

### REXNEGIRÎ



Rexne, ligel ku karê herî zor û zehmet e jî, îro her kes bi hêsanî radibe dikeve bin vî barê giran û xwe wekî rexnegir û rexnekar nîşan dide....

R. 10

## Daxuyaniyek Ji Sekretariya Komîteya Navendî Ya PDK Îranê

**civîna aliyên kurdî yên kurdistana îranê ji bo bas û guherîna bîr û fikran derheq pêkanîna eniya kurdî bi bêy beşdariya komeleya şoreşvan ya zehmetkêşên kurdistanê û rêxistina kurdistanî ya partiya komonîst ya îranê(komele) hate lidarxistin.**

Roja 16.12.1384(07.03.2006)'an: Piştî cehd û hewildaneke berbiçav ya birêz Dr. Saman Şalî, Berpirsiyarê "KNC"ê bi armanca baskirin ji pêkanîna eniyeke Kurdistanî di navbera hêzên opozîsyonê li Kurdistana Îranê, aqibet li ser civîneke hevpar di nava pênc partiyên Kurdî yên Kurdistana Îranê lihevhatin çêbû.

Di roja duşem, 15.12.1384(06.03.2006)'an de, civîna han li gor wî qirarî hate lidarxistin. Şanda PDK Îranê, Yekîtiya Şoreşvanên Gelê Kurdistanê û Rêxistina Xebatê li cihê civînê de amadebûn. Lê mixabin Rêxistina Komeleya Şoreşvan ya Zehmetkêşên Kurdistanê û Rêxistina Kurdistanî ya Partiya Komonîst ya Îranê(Komele) her yekê bi hêcetekê ne amade bûn di civînê de beşdariyê bikin.

Nûnerên partiyên beşdar paş bas û gotûbêj û guhertina bîr û rayan, hêvî xwestin ku di pêşerojê de civîna han bi beşdariya her 5 rêxistinan pêk bihê, bona vê çendê ku binêşeya pêkanîna hevbendî yan eniyekê ku bikare rola bibandor di tevgera Kurd li Kurdistana Îranê de bilîze, darêjin.

## Agehdariya Komîsyona Rêxistina Nepenî Ya PDK Îranê Ji Bo Xelkê Azadîxwaz Yê Pîranşarê



***Divêt xelkê bi şan û şeref yê Pîranşarê ji komployên dujmin agedar bin û rêyê nedin ku ziyan û xisar bigihîje dezgeh, sazî û cihên xizmetkirinê yên giştî ku rejîm bi hêceta vê çendê serkut û êrîşa bêrehmane ya xwe bo ser selkê xurtir bimeşîe.***

Sibêdeya roja 20.12.1384 (11.03.2006)'an, ji aliyê hêzên Întîzamî (leşkerî) ve kesek bi navê **Fayiq Recebî**, kurê Şerîf teqe jî tê kirin û di encamê de jiyana xwe ji dest dide.

Xelkê nerazî ji vê riftara rejîmê bo wergirtina meytê wî givaşeke zaf ji bo rejîmê tînin û aqibet paşnîvro termê wî distînin. Xelkê bêzar, êrîşê dikin ser Pasgeha hejmar 2 û bi dar û keviran derî û pencereyên wê binkeya leşkerî dişikînin; di encamê de hêzên rejîmê gaza rondikrêjê bi kar tînin û dixwazin beşdarên meşê li hev dûr bikin. Lê hewl û cehda wan bê encam dibe. Xwenîşander ji Şeqama "Şênawê" bo aliyê qada Serdeştê dikevin rêyê û derî û pencereyên Şaredarî, "Agahî", Navenda Leşkerî ya hejmar 11, Bankên "Ticaret", "Sipeh", "Sadirat", "Mesken", "Besîc" û "Kişawerzî" didin ber dar û keviran û di dawiyê de ber bi aliyê Navenda Hêzên Leşkerî dikevine rê û teqe û pevçûn awayekî xurtir bi xwe digre. Di encamê de 4 otombêlên Navenda Hêzên Leşkerî tên şewitandin. Li pey vê çendê dubare teqe ji xwenîşanderan tê kirin û hejmarek birîndar dibin. Serbarê vî halî jî meş her berfirehtir dibû û hejmara xwenîşanderan ber bi zêdebûnê diçû. Rejîmê ji rêya kirêgirtiyên xwe ve wekî komployeke herdemî, êrîş kirin ser "Kiyosek"a Îdareya Ajotinê (Rahnimayî we Ranendigî) û Fermandariyê û parek ji wan agir berdanê.

Em rêz û hurmetê ji berxwedaniya xelkê bajarê Pîranşarê digrin û spasiya vê hevgirtin û yekdengiyê dikin. Em behî û sarsaxiyê li malbata Fayiq Recebî dikin û hêviya çêtirbûnê ji birîndaran re dixwazin.

Di heman demê de em didin zanîn ku xelkê bi şan û şeref yê Pîranşarê divêt bizanin di rojek wiha de nabe rê bihête dayîn ku xisar û zirar bigihîje dezgeh û cihên xizmetkirinê yên giştî û rejîm bi sedema vê çendê bi awayekî hov û bêrehmane serkut û êrîşa xwe bo ser xelkê xurtir neke. Hewce ye bihê gotin di êvariya wê rojê de heta sibê li bajar bi tevahî hikûmeta leşkerî û rewşa awarte hebûye û hetanî niha jî rewşa bajar bi giştî aloz dixuye.

# Fazeke Nû Ji Xebata Mafxwazane Ya Gelê Me

**Simayîl Şerefî**

Xebata mafxwazane ya neteweya Kurd li Rojhilata Kurdistanê dijî desthilata dijî Kurd ya Komara Îslamî ya Îranê serbarê berdewamiyê, niha xwe zelandiye qonaxeke nû û taybet ve. Lênihêrînek bi ser meş û bizavên nerazîbûnê yên vê dawiyê ji aliyê xelkê hişyar yê bajarên cuda cuda yên vî parçeyî ji welatê parvekirî yê me û nirxandina aliyên cur bi cur yên van bizavane, wiha dike ku em bi pênaseyek nû şiroveya xebata netewexwazî a vê neteweya bindest bikin.

Ya ku bûye sedema guhartina kakil û metoda îroyîn a neteweya me û derbasî qonaxek din ji xebata giştgîr û gelî kiribe, bilind bûna asta şiûra netewî a civatên xelkê Kurdistanê ye. Bi wateyeke din seh û ruha neteweyî bûye hêvênê xebata mafxwazane ya neteweya me. Ruhek ku kariye, hevdengî û hevhelwestiyê di nava neteweyek perçiqandî û welateke dagîrkirî de biafirîne.

Encama vê dewra nû ji xebata neteweya me bi terzekê şiroveya şiyarî û xwe nasîna neteweyî ye. Xwenasîn bi vê wateyê ku berevajî îdeaya dujminên me, em neteweyek serbixwe ne û xwedî ax û niştîmanek taybet bi xwe ne. Xwe nasîn bi vê wateyê ku me (wekî netewe) tu tiştek ji neteweyên din yên cîhanê kêmtir nine û mafê diyarîkirina çarenivîsa xwe heye.

Serhildana xelkê bajarên Kurdistanê bi taybetî di havîna îsal de tevî şirove kirin ji vê xwenasîna neteweyî, xuya kirin ku xelkê Kurdistanê rejîma Komara Îslamî ya Îranê bi tevehî dijî mafên neteweyî yên xwe dizanin. Her ev hişyariya xelkê Kurdistanê bi desthilatdarên rejîmê da xuya kirin ku ev neteweye ji qonaxa bê ser û beriyê bihoriye û bi hev re û bi awayekî hevgirtî dijî desthilata wan sekinîne. Lewra bi hatine ser kara terorîstekî mîna Ehmedînejad û kabîneya leşkerî-ewlekarî ya wî, zext û givaş bo ser Kurdistanê ji caran zaftir û gurtir bûne. Kuştina bêrehmane ya Şivane Seyîd Qadirî û têkdana hovane ya meytê wî û piştre tepeserkirina xwepêşanderên Mehabadê û şehîdkirina zêdetir ji 20 kes ji xelkê bajarên Seqizê û bajarên din yên Kurdistanê di havîna îsal de gewahyarê vê rastiyê ne.

Rejîma dijî Kurd ya Komara Îslamî a Îranê li ser vê baweriyê ye ku bi xurt û zêde kirina givaşan bo ser neteweya me, dê bikare pêş ji derbirîna dengên nerazî bigre, yan jî bi terzekê wan çavtirs bike. Lê giştgîr û gelî bûna xebata îroyîn a vê neteweyê di serhildanên îsal de da selimandin ku rejîm şaş difikire û karîna fetisandin û bêdeng kirina dengê

mafxwazane ya wan nine. Piştî serhildana xelkê Mehabadê, piraniya bajarên din yên Kurdistanê jî bo piştevanî û mehkûm kirina rejîmê xwenîşandan li derxistin. Ger xwendin û pênaseya rejîmê ji girtine pêş a tund û tûjî û tepeserkirina xelkê Kurdistanê rast ba, nedibû îro em bibane şahîd û gewahyarê meş û serhildana xelkê qehreman yê Makûyê.

Rejîma kîndar û dijî Kurd a Komara Îslamî bi êrîş kirin bo ser xwenîşanderên azadîxwaz yên Makûyê 10 kes ji wan şehîd kirin û zêdetir ji 30 kes birîndar û nêzîk bo 700 kes jî girtin û rapêçî girtîgehan kirin. Zext û givaş, karîna biçok de anîna viyana neteweyî a vê gelê hişyar nine.

Çunkî ev vîn û îradeya, bi derbasbûyiyeke pir ji fedakarî û gorîbûnê aniye ku heta ramanên neteweyî ya wan, sinûrên destçêkirî jî bezandine û em pirsgirêk û dozê di desthilateke serbixwe a Kurdî de(di her çar parçeyan de) dibînin. Lê cur û terzên helwestan ji bo wan ku hêj di bindestî û çewisandinê de dijîn, du alî hene: ji aliyekê bidestxistî û boneyan bi ya hemû Kurd û Kurdistanê dizanin û li hember de helwestê ji xwe nîşan didin. Ji aliyê din ve jî ev destkevt û bonane kirine bi hêcetek û bi xwenîşandan û hatine ser şeqaman, dengê nerazî û vêzariya xwe digîhîjine guhê Komara Îslamî. Girtina Ocalan, pesend kirina federaliyê ji bo Başûra Kurdistanê, bûyera 1'ê Şibata Hewlêrê, bûyera Qamîşlo û wd ...

Ev bone û destkevtên parên din yên Kurdistanê bûn ku xelkê Rojhilatê Kurdistanê bi van hincet û destkevtane

Lênihêrîn û xwendina vê faza nû ji xebata neteweya me vê rastiyê dide eyanê ku neteweya me di Rojhilata Kurdistanê de li warê hişyarî ve bi vê astê ji hest û şiûr û xwenasîna neteweyî gihîştiye ku halet û awayek giştgîr û tev alî bi bizavên xwe didin.

3. **Hevdengî û hevhelwestiya civatên xelkê**

Yek ji taybetmendiyên din yên qonaxa xebata gelî (cemawerî), yekîtiya di navbera refên civatên xelkê ye, anku hevdengî û hevhelwestî, Ev taybetmendiye bi tevahî di xwenîşandanên Reşemeya 1377(1998)'an û havîna îsal ya neteweya me di bajarên Kurdistanê de bi başî û aşkera xwe derxist (Pênase kir). Civatên xelkê Kurdistanê li



bajarên din piştevaniya xurt a xwe ji xelkê bajarê Sine nîşan dan û cinayeta rejîmê li bajarên Sine mehkûm û şermezar kirin. Her wiha di havîna îsdal de jî bo carek din xelkê Kurdistanê dan selimandin ku li ser bingeha ruha neteweyî, hevdeng û hevhelwest in. Lewma piştî xwenîşandanên xelkê bajarê Mehabadê û êrîşa rejîmê bo ser xelkê vî bajarî, xelkê bajarê din yên Kurdistanê jî bi derketin û hatina ser rêgehan gihîştina hewara xelkê bajarê Mehabadê û kerb û vêzariya xwe ji rejîmê dane eyanê.

4. **Xurtbûna zext û givaşan bo ser xelkê Kurdistanê**

Rejîmê bi başî hest bi biwêrî û çelengbûna xelkê Kurdistanê di xebata bi dijî xwe de kiriye. Lê li gor îdeolojîk bûn û kakila neguher a xwe nikare îtirafê bi xwast û daxwazên vê neteweyê bike. Lewra bi merema fetisandin û bêdengkirina dengê netewexwaziyê, roj li pey rojê givaşên xwe bo ser xelkê pêtir kirine û cehd û hewla tepeserkirina zaftir a wan dide. Eva jî ji aliyekê mandîbûna rejîmê û ji aliyê din jî yekdengî û tekez kirina neteweya me li ser retkirina rejîmê dide eyanê.

***Ger xwendin û pênaseya rejîmê ji girtine pêş a tund û tûjî û tepeserkirina xelkê Kurdistanê rast ba, nedibû îro em bibane şahîd û gewahyarê meş û serhildana xelkê qehreman yê Makûyê***

piştrast e û rewşeke wekî niha ya pir ji hişyariya neteweyî heye û ji pêşerojeke geş û ronahî re dinêre.

Xebata van çend salên dawiyê yên xelkê Rojhilata Kurdistanê tevî vê ku bilind bûna asta şiyarî û hişyariya neteweyî rolek sereke û bingehîn lîstiye, xwedî hin taybetmendiyên cuda ye ku pêk hatine ji:

1. **Veguhastina bone û destkevtên parên din yên Kurdistanê**

Bilidbûna asta hest û şiûra neteweyî û pirosesa xwenasîna neteweyî bi terzekê hevdengî û hevhelwestî di liv û bizavên vê neteweyê di Rojhilat Kurdistanê de pêk helwesta xwe hebûne û weke hecetekê, bi armanca nîşandana dijberiyê tevî rejîmê mifah jê wergirtine.

2. **Giştgîr(gelîbûn) bûna bizavên nerazîbûnê**

Di heyama yek sala derbasbûyî de xelkê Kurdistanê bi giştî-ne tenê bajar û deverek diyarîkirî – ji bajar û deverên cuda cuda yên Kurdistanê (her ji Makûyê heta Îlamê) bi tevahî û giştgîr meş û bizavên nerazîbûnê ji xwe nîşan dane.

Bi giştî qonaxa xebat û tekoşîna mafxwazane ya neteweya me di Rojhilata Kurdistanê xwe avêtiyê nava fazeke nû. Partî û aliyên siyasî yên Rojhilatê Kurdistanê jî li serveyî hemûyan PDK Îranê, hewce ye ku dahûrandin û xwendineke hûr û berfireh li ser vê qonaxê ji xebata neteweya me bikin ji bo ku bikarin bi merema bidestveanîna armancên me yên neteweyî kanalîze bikin û cehda bihêz kirina hest û şiûra neteweyî a xelkê me ji bo misoger kirina mafên rewa û berheq yên me bidin.

# Demokrasî, Biha Û Piratîka Wê

Kurmanc Hakkî
kurmanchakki@yahoo.com

Beşa 23

**Berhevdana giştî**

**Destpêk**

Di wan salên derbazbûyî de, demokrasiya delîbratîv zortirîn bala teorîzanên demokrasiyê bo aliyê xwe kişandiye.

Demokrasiya delîberatîv paşê demokrasiya bi beşdariya giştî yan li rêya nûnerayetiyê zortirîn bal û gengeşa piştî 1980'an de bi destve anî. Bi hizra alîgirên demokrasiya delîberatîv taybetmendiyên herî giring yên demokrasiyê beşdarî, diyalog û berhevkirina hizr û ramanan berî biryardanê ye[1]. Me di beşên berê li ser demokrasiya delîberatîv li teoriyên edaletxwazane ya "Beitz" û demokrasiya bihêz ya "Barber" axiviye.

Bi baweriya "Elstêr" (1982), demokrasiya delîberatîv naxwaze prêfirênsa welatiyan hev bide, lê dixwaza wan ***biguhorîne***. Destewajeya han di demokrasiya herî îdeal de diviya prêfirênsên takekesan giraniya wek hev bên dan, ku em dikaribin bi demokrasiya "Joshua Cohenia" (1991) yan demokrasiya "***aggregative"*** nav bibin. Alîgirên wê ramanê tagirê teroriya wîsta gel, teoriya birêveberiya berpirsane û herwiha alîgirên yeksaniya civakî ne. Li gor demokrasiya dêlîberatîv, armanc li gotûbêj û gengeşeya giştî ewa ye ku pirsgirêkên pêwendîdar bi civakê bi awayekê bikevin ber gengeşe û pênasekirinê ku tu tişt bo welatiyan dema biryara kolektîv hin nehê nas kirin.

Li gor alîgirên demokrasiya delîberatîv ew hizr û ramanên ku herî baş in, di gotûbêj û diyaloga vekirî de dê bihên peyda kirin û şansê serkevtinê bo baştirin altirnatîvan e. Demokrasiya delîberatîv di gelek waran ve bingehên wek Komarîxwazan heye ji bo biryardanê û başiya hevbeş. Demokrasiya delîberatîv dikaribe her wisa bersîvek be bi wê giriftê ku di beşên berê da li ser başî an berjewendiya havbeş di civakên çend alî de hate bas kirin. Berhevdan û hizra giştî li demokrasiyê de dikaribin bibin metodên lihev gihîştinê di dema dijheviya berjewendiyan de. Li ber wê jî demokrasiya dêlîberatîv dikaribe bibe konstraktîv (avadanker).

Di çend beşên pêşîn de em dê ser teoriya demokrasiya delîberatîv, konsensûsa ûteralîstan li ser pirsgirêkên demokrasiya giştî biaxivin. Di şûn de em dê di beşên pêşîn de mijara xwe di mêzegeha siyasî û ramyariyê de bînin berçav. Em di vêgotara xwe de dê qala avakerên teoriya delîberatîv bikin.

**Ûtîlarîsm û hizra ragihandinê**

Ji kilasîkên Ûtîralîzm an berjewendîxwazan em dikaribin "Jeremy Bentham" (1784 -1832) bidin nasandin. "James Mill" (1773- 1835) felsefeya "Bentham" di dema guftûgoyên civakî yên Îngilîstanê "popûler" (bi nav û deng) kir. Di felsefa "Bentham" mirov bi awayekî "hedonistike" derûnnasî tê dîtin. Bi wê wateyê ku sirûşta mirov dixwaze hertim tenahiyek fikrî bidestve bîne û xwe li nexweşiyan biparêze. Pêvajoya ***utility*** bi wateya xweş moral, bi berjewendî û bi keyf tê dîtin. Armanca ûtîlarîzma kilasîk ewa bû ku piraniya mirovan seh bi tenahî û asayişê bikin. Eva jî bi wê wateyê tê ku alîgirên ûtîlarîzmê kiryarên dewletê an mirovan li gor pîvanên sincî dinirxînin, da ku bizanibin karê han heta çiqas di berjewendiya tenahiya civakî, wate ûteralîzma civakî de ye. Ramana han her wisa bû bingeha lêkvedan û biryara siyasî.

Li gor "Bentham" û "Mill", em dikarin ***demokrasiya li ser bingeha nûnerayetiyê*** bi vî awayî şirove bikin ku biryarên li ser bingeha Parlamantarîzmê bi awayekî herî baş xizmeta tenahiya civakî bikin. Tenahiya giştî ya civakî dikaribe wek bihayek serbixwe bihê dîtin ku bidestveanîna wê di rastî de bidestxistina demokrasiyê ye. Her wiha em dikaribe Teoriya ûtîlarîsmê bi konsekvential yan exlaqa piştî bûyeran bidin nasandin. Ji ber ku kiryar û metodên ku hatine bi kar anîn, li gor encama wan tê berhev (qezawet) kirin.

Li gor "Bentham", demokrasiya Parlamantarîstî ji ber vê dikaribe tenahiya civakî ber bi pêş bibe, çunkî welatî dikaribin zêrevaniya kar û barên Parlemantaran bikin û di dengdana xwe de biryarê li ser kiryar û ji nû ve hilbijartina wan bidin. Di nivîsên dawiya xwe de "Bentham" li ser wê baweriyê ye ku Parlemanter divêt salê carek bihêne hilbijartin û dengdan jî mafê giştî û her wiha wekhev (ji bo mêran û jinan) bibe. "Bentham" berevajî "John Stuartt Mill" ku xwazyarê dengdana eşkere bû, alîgirê dengdana nepenî ye.

Bi dîtina "Bentham" ragihandin û zelalî dibe hegera wê yekê ku biryarder bi awayekî berpirsane biryaran bidin û dibe sebeba wê yekê ku xwe li karên nebaş dûr bixin. "Bentham" ragihandinê wek dadgehek an tirîbûnek datîne ku Parlemanteran naçar dike erkên xwe derheq welatiyan bicih bînin û wan biryaran bidin yên ku di berjewendiya welatiyan da ye. Li gor wî ragihandin û zelaliyet bi wê wateyê ye ku axavtin, axivînên di Parlemanê de, biryar, hizr û ramanên Parlemanteran bi awayekî vekirî di ragihandinan de bihê weşandin. Her wiha li gor wî, faktên pêwendîdar bi biryarên Parlemanteran jî divêt eşkere bin. Li gor wî nepenî kirin yan hewildan bo veşartina tiştan, şik û gumanên mirov li ser nebaşiya biryaran zêdetir dike û dibe hayderê hizra nigatîv. Ji bo bidestveanîna baweriya welatiyan, hewceyî bi vekirîtiya (şefafiyeta) Parlemantar û karbidestan heye. "Bentham" sê (3) dujminên ragihandinê (giştî bûnê) bi vî awayî destnîşan kirine: 1. Ev xirabkarên ku hertim ji ber dad û edaletê direvin, 2. Dîktatorên ku dixwazin bi serkut û zexta xwe hemû hizr û ramanên giştî û ragihandinî bi awayekê kontrol bike ku tenê alîgirî ji wî bê kirin 3. Birêvebir û biryarderên bê behre, yên ku xetayê sernekevtina xwe dixin stûyê xelkê din. Giştîbûn û eşkere bûna destûr û yasa di ûtîralîzma "Bentham" de li ser bingeha berjewendiyên giştî tê berevanî kirin. Li gor wî welatî bi bihîstin û dîtina çalakiyên biryarderan xweşiyê dikin.

Parastina nepeniyan jî dikaribe li ûtîlarîzmê dê bê berevanî kirin, heke bihê û ewa li xizmeta ewlekariya giştî de bihê dîtin. Li gor "Bentham" nepenîbûna pirsên jêrîn dikaribin xizmeta tenahiya giştî bikin. Nepenîparêzî di demekê de ku dujmin bixwazibe cihê xwe di nava civakê de veke yan vekirîtiya civakî bikar bîne û bixwazibe zirarê li mirovên bêguneh û sivîl bide an jî di dema ku hukmê giran ser tawanbaran tê dan. Li gor wî her wisa dema ku biryarder seh dikin ku nikaribin baweriyê bi welatiyan bînin yan hêza biryardan û lêkvedana welatiyan di astekê de nine ku pirsgirêkan berhev bidin, nepenîparastin di xizmeta ewlehiya civakî de tê zanîn. Bi dîtina "Bentham" welatî bi giştî ji biryarderan zêdetir cihê baweriyê ne, li ber ku gelek caran biryarder dixwazibin hêz û desthilata xwe bi awayekî xirab bi kar bînin. Bi baweriya "Bentham" nepenî parastin bi hegera wê ku welatiyan hêza berhevdanê nine, şaşî ye; ji ber ku nepenîkirina pirsgirêkan hêza raman û berhevdanê li welatiyan distîne. Nepenîkirina biryaran yan hegerên biryardanê dibe hegera pêşgîrî kirin li ronakbîrî û çêbûna hizr û ramanên welatiyan li ser pirsgirêkên pêwendîdar bi wan.

Li hember dîtina "Bentham" de, bîrmend "Amy Gutmann" û "Dennis Thompson" (1996) li ser vê baweriyê ne ku maksîmal kirina zelalbînê nikaribe di xizmeta lêkvedana demokratîk û berpirsariya biryarderan be. Li gor wan hinek pirsan bêy ku hewce be berpirsiyariya biryarderan bikeve jêr pirsyaran, dikaribin bi awayê nepenî cî bi cî bikin. Pirsên han bo nimûne dikaribin jiyana taybetî ya biryarderan be. Bi baweriya "Gutmann" û "Thompson" du cur mijarên nepenî parastinê hene ku bo biryarderan li hember eşkerebûn û berpirsiyariya wan girîng in. Ew jî nepeniya xiyanetkarane û nihênîyên kûr in. Nepeniyên xiyanetkarane bi wan nihênîyan tê gotin ku bi hegera rênedan bi welatiyan bo zanîna wan nepeniyane ziyanek mezin bi civakê bigehe û baweriya welatiyan bi biryarderan ji nav bibe. Bo nimûne mirov dikaribin qala piropagendeya şer bike ku tê de dixwazibin tenê zirar û ziyanên dujmin çend qat mezintir nîşan bidin û ziyanên xwe yên rastî veşêrin û welatî ser rastiyan agahdar nehên kirin. Nepeniyên kûr ji wan nihênîyan re tê gotin ku welatiyan tu agahdariyek ji wan nînin, bo nimûne bernameya çêkirina çekên Etomî yan biyologî bi nepenî ji wan nihênîyan e ku biryarder li welatiyan diparêzin. Him nepeniyên xiyanetkarane him jî nihênîyên kûr dibin hegera berlêgirtina Parlemanê li zêrevanîkirin li biryaran û bi vî awayî jarkirina demokrasiyê.

Zelaliya ûtîralîzmê ji bo baştirbûna encamên biryarên desthilatdarane ye. Ew encamane jî girêdayî bi wê yekê ne ku heta çiqasî li mafê xwe ji bo bidestveanîna zanyariyan ser biryar û hegerên biryara desthilatdaran çalak in û her wiha bi seha berpirsyariya biryarderan hatiye girêdan ka çiqas bi soz û peymanên xwe wefadar in. Bi vî awayî di dema darêtin û damezrandina sazî û bingehan divêt li gor wan teoriyane ne tenê hewece bi maksîmal (herî berfireh) kirina vekirîtiyê ye, belkî divê hewce bi seha berpirsyariyê jî di hilbijartinan de heye. Her wiha hinek sinc li welatiyan jî tê çavnihêrî kirin, ew jî zêrevaniya çalakane li ser biryarên biryarderan û beşdariya çelengane di hilbijartin û dengdanan de ye.

***Doma basê di hejmara din de.***

**Çalakvana Mafên Mirovan Û Xebatkara Mafê Jinan Dr. Roya Tilûî:**

# EZ DÊ VEGERİME WELAT, LÊ TEVÎ HEMÛ PÊŞMERGE Û ŞOREŞVANÊN WELATÊ XWE YÊ SERFİRAZ

**Sarîna** **(Beşa 2 û dawî)**

**Pirs:** Em dizanin ku hûn wekî çalakvaneka warê mafên mirovan û mafên Jinên Kurd, ji nêzîk ve guhertinên siyasî jî şopandine. Vê dawiyê hejmarek ji endamên Kurd yên gerên berê yên Parlemana Şêwra Îslamî ya Îranê û çend kesên naskirî ku derbasbûyiya wan ji xelkê Kurdistanê neveşartî ye, rêxistinek bi navê Eniya Yekbûyî ya Kurd ava kirine û ragehandine ku dixwazin di çarçoveya Qanûna Bingehîn ya Îranê de mafên Kurdan bidestve bînin. Nêrîna te derbarê vê rêxistina nû çî ye û bi baweriya we di çarçoveya desthilata Komara Îslamî de, rêxistineke Kurdî ya serbixwe, dikare tekoşîn hebe? Yan çêtir e em bibêjin dikare bi vêc û qazancê pirsgirêkên Kurd li Kurdistana Îranê gavan bavêje? Heke na armanc ji avakirina rêxistineke Kurdî ya wisan di bin desthilata rejîma Komara Îslamî de çiye?

**R.T:** Ez pirsgirêka sereke di destpêkê de ji aliyê partiyên Kurdî bi xwe dibînim ku di vî warî de ew hinde mehtel bûn û xemsarî kirin ku hin kes bi neçarî û li gorî karîn û şiyan û derfeta xwe li hundirê Îranê ve dest bi kar bûn. Ez dixwazim vê çendê jî bibêjim, ew kesên ku dest dayîne vî erkî, ne yeksere reş bibînin û ne yeksere sipî. Wan her derbasbûyiyek hebe, xuya ye divêt paşan bersiva dadgeha raya giştî ya xelkê Kurdistanê bidin û xelk kiryarên wan yên baş û xirab dê bidin nirxandin. Aliyê girîng yê vî karî eva ye ku pirsgirêka Kurd di Îranê de hinde xuya û berçav e ku nahê înkar kirin û bi awayê rêxistineke kartonî jî be, dikeve ber bas. Aliyê nerênî yê wê eva ye ku di bin qanûna bingehîn ya Komara Îslamî ya Îranê de , xalek û nîviya vê yasayê - heta heke piştî 27 salan jî birêve biçe- mafê gelê Kurd bidestve nahê û ji bo bidestveanîna mafên neteweya me di Îranê de hewcehî bi guhartinên kûr û berfireh di Qanûna Bingehîn de ye, meger eva ku Fars dibêjin, em bixwazin bibêjin "kaçî bêh ez hîçî" û bi vê qasa kêm jî em razî bibin. Helbet hewceye em vê çendê jî berçav bigrin, Feraksyona Nûnerên Kurd jî di Parlemana Îslamî ya Îranê de çêbû, ne di gera şeşem û ne ya heftem de ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd karek pê nehate kirin û ne tê kirin. Sedema bingehîn jî zêrevaniya "Îstiswabî" (diyarî kirinê) di Îranê de ye û berbijarên Parlemantoyê her ew kesên rejîmê ne ku naxwazin û izna wan jî tune kareke dijî xwestek û dilê rejîmê bikin. Bi her halê heyî heke armanca Eniya Yekbûyî ya Kurd mafê Kurdan e, divêt netirsane derkeve meydanê û ji girtin, zîndan, êşandin û îşkenceyê netirse, hekene bi gotina Farsan "şutur sewarî dula dula nemîşê''. Mînaka karê netirsane jî Rêxistina Mafên Mirovan li Kurdistanê ye ku heya niha karê baş kiriye.

**Pirs:** Niha ku hûn li derveyî welat in û tevî baldan bi wan talî û nexweşiyên ku di rêya xebatê de rastî te hatine, rengê vê çendê nade te armanca vegeriyanê hebe. Bernameya we çî ye û gelo hûn dê xebata xwe bidomînin?



Dr. Roya Tilûî:
*Ji min re bêdengî û çeleng nebûn ji mirinê dijwartir e.*

**R.T:** Ez dê vegerime welat, lê tevî hemû Pêşmerge û şoreşvanên welatê xwe yê serfiraz, Rojhilata Kurdistanê. Ez bawer nakim di vê rewşê de, çi di warê navneteweyî û çi di warê hundirîn de ku bi ser Komara Îslamî ya Îranê de hatiye, ev vegeriyane heyemeke gelek dirêj bikişîne. Ceribîna Taleban li Efxanistanê û Sedam li Îraqê û pirojeya Rojhilata Navîn ya mezin ji me re dibêje guherîn dê pêk bihê. Her wekî hûn dizanin dosya Etomî ya Îranê ji aliyê Ajansa Vejena Etomê ya Navneteweyî ji bo Konseya Ewlekariya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî hate şandin û rengê vê hindê nade rojên ronahî û geş di pêşerojê de li benda Komara Îslamî bin.

Niha ku ez hatime derve, ji bo domandina xebat û çalakiyan hatime. Xuya ye heke ez di Îranê de mabam, heta heke ez ji wan tawan û gunehên "muharîb" û tiştên din jî xilas bibam - ku nedibûm - diviya ez bêdeng birûniştibam û çi nekim û çi nenivîsim. Ji bo min bêdengî wekî hepsa bilind e û ji îdamê xirabtir e. Ji ber ku bi îdam û lidarvekirinê yekcarî jiyana te bi dawî tê, lê di girtîgehê de jiyan, ji mirinê nexweştir e. Ji min re bêdengî û çeleng nebûn ji mirinê dijwartir e.

**Pirs:** Wekî xebatkareka mafê mirovan û mafê wekheviya jin û mêran, we çi gotinek ji bo xwendevanên Agirî û Kurdistanê û bi giştî Jinên Kurd heye?

**R.T:** Bi rastî gotinên min gelek in, ez hêvî dikim xwendevanên hêja jê mandî nebin:

1. Em demekê dikarin hikûmeteke demokratîk ava bikin ku hizr û ramana me demokratîk be. Bi giştî Kurd ji bo demokratîkbûnê hewceye takekes perweriyê bavêje dûr. Ev edeta ku em takekesekê dikin Xwedê û ew qas mezin dikin ku em bawer in ev mirove nabe tu şaşiyek hebe û miroveke/a herî vala be, şaşî û çewtiyeke mezin e. Gelek caran jî pir bi hêsanî wî/ê qehreman û mêrxasê/a ku me çê kiriye bi şaşiyên herî kêm diherifînin û wisan bêrehmane dikutin ku nikare serî hilde ku eva jî şaşiyeke mezintir e.

2. Divêt em cehd û hewleke zaf bidin çanda xwe di halê devkî de derbixin û bikin çandeke nivîsarî. Divêt em jin û mêr bi xwendin û perwerdekirina xwe û zarokên xwe girîngiyê bidin. Her çiqas em pileya xwendewarbûna xwe bibin jor, hêşta kêm e û kêmasî û valahî zaf e.

3. Zorlêkirî çi jin be, çi neteweyek be, bi sedema wê zulma ku jê tê kirin, di warê kesayetî, civakî û kulturî ve pirsgirêkên zaf hene. Bo rizgarbûn ji van zulmane, hewce ye di yekemîn gav de me bawerî bi xwe û karînên xwe hebe. Bila em ne jina çeleng, netirs û xwedî şiyan bi mêran bişibînin û ne Kurdê netirs û xwedî karîn bi dest perwedeyê desthilatê bizanin. Divêt em bawer bikin ku em jî xwediyê hêz û karînê ne. Em vê hêzê dixin ser gunehbar kirina hev - ku ji vê rêyê em xizmetê bi desthilatê

dikin – em hêz û şiyana xwe bixin ser hevgirtinê, bidestxistiyên me dê zêdetir bin.

4. Ji bo wan kesan jî ku bi xwendin û ji ber kirina du pirtûkan xwe bi rewşenbîr û xwende dizanin û hemû dema xwe bo vê çandê terxan dikin ku dîtin û gotinên kevn û nû yên hizirvanên Rojava ezber bikin û bi navê xwende û rewşenbîr xwe li çavê hev bikutin – mixabin ew rastiya berçav di hundirê welat de gelek e – ez dibêjim ronakbîrî liber kirin û seh bi xwendevar kirinê û kişandina dîwarekê di navbera xwe û xelkê de nine. Qahîmkarî û nebûna biwêriyê, bi aqil zanîn nahê wateya rewşenbîriyê. Divêt rewşenbîr bêtirs û rexnegir be û ji xelkê xwe jî ne veqetiyabe. Ew ronakbîrê/a ku nekare bandorek li ser jiyana xelkê hebe, pûşikekê naîne. Eger xwe peydaker û afirînerê ramaneke nû nebe, romana Rojava jî wekî xwe nusxe neke û cehd û hewlê bide bike xwecihî û tevî rewşa civaka xwe binirxîne. Bi raya min rewşenbîrê Kurd Pêşmergeyek çandî ye û xuya ye Pêşmergayetî tevî tirs û qahîmkariyê naşibe hev.

5. Divêt jinên xebatkar yên Kurd di vê qonaxê de ku tevgera jinan di cîhanê de bidestxistinên baş hene û ji bilî xebat ji bo wekheviya jin û mêran, ji bo wekheviya mafên neteweyî jî, nemaze neteweya zulmlêkirî ya Kurd cehd û bizavê bidin. Xuya ye zulma netewî jî serbarê stema zayendî yek ji sedemên perçiqandina jinên Kurd e. Eva rastiyeke ku haşa jê nehê kirin û ez matmayî me hin çalakvanên warê mafên jinan bi sedema alîgirî kirina wan ji îdeolojiyekê vê rastiyê înkar dikin. Renge sedema vê çendê jî dûr ketina çendîn salî li welat be û seh pê nekirina wan êş û azarên ku jineke Kurd bi sebebê Kurdbûnê dikişîne. Kifş û eyan e jiyan li welateke Ewropayê û mifah wergirtin ji van mafane bo her jinekê bi fermî hatiye naskirin, nikare tevî awayê jiyana jinên me di civakeke daxistî û bi hikûmetekî îdeolojîk de ku jin bi nîva mêr û bi koleya zayendî dizane, wekhev be. Divêt mirov di hundirê welat de bijî heya bizanibe dema ku bi hinceta Kurd bûnê çawa awayekî tehqîrê bi mirov re dinêrin û ji ber wê ku tu Kurd î, giringiyeke wiha nadin te, derdê zulma neteweyî çî ye. Vêca heke jin bî û Kurd jî bî, êş û azara te du hember e.

6. Em jin di darêtina vê îdeolojiyê de çiqas beşdar bûne? Gelo mêrên darêjerê vê îdeolojiyanê çiqas xasmaniyên me berçav digirin? Gelo di wê wekheviyê de ku bas jê dikin, bi rastî zayenda jin mifah jê standiye?

Ceribînên civakî selimandine ku kêmasî û valahiyên zayendî di her tax û qatekê de her berdewam bûye, bo mînak jineke kedkar tu car mafê mêrekî kedkar nine û bi sedema zayendî her tê çewisandin.

Em jin nikarin bi dirûşmên bê kiryar yê wekheviyê xwe bixapînin. Divêt wekhevî di hemû waran de pêk bihe.

7. Ez li ser vê baweriyê me ku bizava jinên hundirê welat, ne bizaveke îdeolojîk e û bi hêsanî mark û nîşana Lîberaliyê jî pêre nahê zeliqandin. Nemaze vê bizavê di bersîva îdeolojiyeke tundrewane de derketiye holê û ji her raman û dîtinekê ku berbend û berteng bike divêt ku weke min bîr bikin û her ez rast dikim, vêzar dibe. Vê bizavê pênase û xasmaniya xwe heye û bandor jî hebûye. Her çiqas bidestxistiyên vê bi sedema rewşa desthilatdariya Îranê zaf nebûye. Di vê navberê de jî bizava karker û xwendekarî jî rastî pirsgirêka kêm destkevtiya han in û taybet bi bizava jinan nine.



**Dr. Roya Tilûî:**
***Em demekê dikarin hikûmeteke demokratîk ava bikin ku hizr û ramana me demokratîk be. Bi giştî Kurd ji bo demokratîkbûnê hewceye takekes perweriyê bavêje dûr*.**

8. Mixabin jinên Kurd û Îranê jî peyrewiyê ji heman rê û rêbazên mêr serdestiyê dikin ku bi ser her deste û komekê de hatiye selimandin. Bo nimûne jinên filan Partiyê her li ser rêbaza mêrên xwe tevî jinên vê Partiyê ku bîr û baweriya van ya îdeolojîk ji hev cuda ye yan li hev veqetiyane, li hev nakin û ji hev nêzîk nakevin. Min eva bi çavê xwe dîtiye û ez gelek pê matmayî me. Her Partiyek basa mafê jinan û wekheviyê dikin, lê jinên van partiyên cuda li ser pirsgirêkên xwe yê havbaş li hev neketine!

Eva di halekê de ye ku armanca me hemûyan wekheviya jin û mêran e û bi nêrîna min em hemû gotinekê dikin, lê bi zaravên cuda cuda. Ez baverim dema vê çendê hatiye ku jin edeta mêr serdestane bişkînin û ji bo pêkanîna eniyeke hevgirtî ya jinan, amade bin bîr û ramanên cuda bipejirînin û em hemû ji bo armanca xwe ya hevpar yanî wekheviya mafê jin û mêran û ji bo mafê mirovan bixebitin, çi Demokrat, çi Komele, çi Komonîst, çi olî û çi ... eva nine em tev jin in û bi sedema zayenda xwe em tên perçiqandin?

**Pirs:** weke hûn dizanin 60 sal bi ser avabûna PDK Îranê derbas bû. Partiyek ku di rêya bidestveanîna maf û azadiyên xelkê Kurdistanê de xebateke bêrawestiyan a bi xwîna hezaran şehîdên serbilind domandiye û di bernameya xwe de baweriyeke kûr bi hemû bendên Carnameya Gerdûnî ya Mafên Mirovan û nemaze wekheviya jin û mêran di malbat û civakê de heye. Wek pirsa dawiyê raya we derheq PDK Îranê çiye?

**R. T:** Ez weke Kurdek ji hemû Partiyên Kurdî re hez dikm. Lê PDK Îranê diyariya Pêşewayê me yê nemir Qazî Mihemed e û ji bo tevan rêzeke taybetî heye. Yek jî guneh û tawanên min jî di dosyeya min li dadgehê de, alîgirî ji PDK Îranê ye, ji ber vê çendê min di hevpeyvîna Radyoyî de basa şehîd kirina Dr. Qasimlo kiriye. Lê di vê beşa pirsê de ku te got baweriyeke kûr bi wekheviya tewaw ya jin û mêran heye, ez bawerim îro ev kûrahiya pitir di gotinan de ye heta kiryarê. Mêze bikin di çaxê (Komara Kurdistanê) de bandora jinan bo vê rewşê çiqas berçav, eyan û bibandor bû? Îca nirxandina civaka wê demê û civaka niha û rewşa çax û serdemê niha bikin. Gelo li gor pêşketina cîhanê û rewşê, cihê jinên partiyê jî çêtir bûye û pêgihîştine? Çiqas jinên me di rêberiya partiyê de pişikdar in? Çiqas derfeta perwerdebûnê û amadebûna wan di vî warî de ji van re pêk hatiye? Jin di biryardana partiyê de çiqas beşdar in? Çend jin endama Komîta Navendî û Deftera Siyasî ne? Me çend jinên Sekreter hebûne? Radeya xwendewariya jinên partiyê li hember mêran çawa ye?

Her çend ez haşayê ji xebat û têkoşîna bêrawestiyan ya Yekîtiya Jinan ya Partiyê nakim û bêguman li bal min gelek bihagiran û girîng e, lê ez bawerim me hêşta rêyeke gelek heta gihîştin bi wê kûrahiyê maye ku te anî zanîn

Spas û serkevtî bin.

# Ji Dayîk Serdestiyê Heta ...

**Amadekar: Miryem Hacîpûr**

Li seranserê dîrokê, jin hertim qata herî çewisandî ya civakê bûne. Her çend ku berî desthilatdariya sîstema mêr serdestiyê jin xwedî rolek bingehîn bûn, lê wê demê tu regezek nehatiye çewisandin û em dikarin bibêjin ku li dema desthilatdar bûna jinan de, dîsan jî jinan pir êş û derd kişandine. Serbarê wê ku di vî serdemî de rola jinan li ser bizava gund akincîtiyê xuya û berçav e û karê çandinî, xwedî kirina Ajelan û parastina wan, çêkirina mal û xaniyên gundî, xwedî kirina zarokan, ristin û raçandin, kêlan û ... ji dahênan û afirandinên wan bûne û her wiha guhertina zimanê aşaretî yê destpêkê bi zimaek pêşkevtîtir ku pêkhatibû ji peyvên derheq bi alavên berhem anînê, ji destkevtên jinan bûn, lê bi mifah standin ji gav û cot û zêdebûna biha û girîngiya şivaniyê 4 hezar salan berî zayînê, rola jinê kêmreng dibe û roj bo rojê pêtir di malê de tê heps kirin. Li serdemê mêr serdestiya li çaxê "Someriyan" de bi pilê 2 tên hesibandin û bi koletiyê tên kişandin û desthilat û pêgeha xwe ya civakî ji dest didin û dewrana nizimbûna pêgeha jinê di dîrokê de dest pê dike.



**Di bizava gund akincîtiyê de, çandinî, xwedî kirina Ajelan, xwedî kirina zarokan, ristin û raçandin rolê jinan pêk dianî**

Bi dest pêkirina serdestiya çanda mêrserdestiyê, yekemîn "fahişe xane" bi navê "Mûsa Karim" ji aliyê Someriyan ve tê ava kirin û jin tên çewisandin û tevî ji navçûna hêdî hêdî ya pêgeh û bihagiraniya "Îlaheyan(pantion)", pêgeha jinan jî hêdî hêdî lawaz bû û jin bi koletiyê hatin kişandin û di gel peydabûna şaristaniyetê, serdestiya mêran derkete holê û bandor dayîna wê zêde bû. Ji holê rakirin û li perawez xistina hêdî hêdî a jinan ji navendên jêrxan û serxan yên civaka çîndar bû sedema nivîsîn û weşana pirtûka **Dîroka Bê Jin** û di dîrokê de jî li rê derketineke mezin ku bû sedema destpêbûna newekheviya regezî, pêk tê û di rastî de newekheviya regezî di gel pêkhatina newekheviya çînayetî, li hezareya duyemîn a berî zayînê de dest pê dike û heya îro bi terzên cur bi cur didome.

Di dewrana sermayedaryê de jî, geşe kirina aborî bû sedema çêbûna valahiyek mezin di navbera qatên civakê. Aborî di asta herî zaf de bû sedema valahiyek mezin di navbera welatên geşekirî û negeşekirî û di asta kêmtir de jî bûye sedema pêkhatina valahiyê di navbera jin û mêran. Bi awayekê ku jin bûne gorî û mêr jî bûne xwediyê pêvajoya aborî.

Di vê serdemê de her çend ku hebûna jinê di pêşveçûna aborî de dikarî jinê bigihîjîne pêgeheke civakî a bilindtir û beşdariyek karîger, bihêz û bibandor di biryardanên li ser xwe û çarenivîsa xwe û civakê de hebe, lê hebûna astengên çandî, aborî, siyasî, û ... bûne sebeba wê ku jin nekarin rol û cihwareke baş hebin.

Heya niha jî di piraniya welatan de, hikûmetan li demên hesas, dijwar û bixeter yên civakê de ji jinan mifah wergirtiye û piştî çareserî û nemana asteng û kirîzê, dîsan jin di malê de hatine hepsî kirin. Mixabin pesend kirina riftarên berevankar yên jinê di malbatê de bi riftarên berevankar yên wê redi civakê de alîkarî kiriye û bûye sedema wê ku hertim tevî dana bihayek zaf, lê vêc û mifaha herî kêm bipejirînin. Lewra jin divêt ji bo xilas bûn ji vê çanda mêr serdest, mijûlî nirxandin û vekolîna sebeb û sedemên dîrokî yên wê bin û bi nasîna pêtir li ser xwe û peyda kirina nasnameya rastîn a xwe, rêçareyek rast û dirust û bersivder hilbijêrin. Çunku berevajî vê yekê çawaniya bi koletî kişandina jinan her roj bi pêşveçûna teknolojiyê nûjentir dibe û jin jî nikarin di vê xebatê de serkevtinek wiha bidest bixin.

Hêjayî gotinê ye ku bi baldan bi çîvanokên dîrokî û pirtûkên dîroknasî, ev tişte tê xuya kirin ku bavê fêlbaz û zana(enkî) koletiya jinê bi mentiqa bi hev re saziyan a digel wê biriye pêş û li dewrana pêşverûyiya Babilê de, "Merdok", Xwedayê Babiliyan derba kuştinê bi îlaheya dayîk(Tiyamat) ê xistiye.

Niha jî her çand ku dirûşm û siloganên zor di rêya misoger kirina mafê jinan de hatine dan, lê di kiryar û piratîkê de tu berhemek nebûye û di zaf welatên kevneşop de, piraniya jinên kedkar mijûlê karên giran û şev û rojî ne, lê mifaheke wisa ji vî karî nastînin. Îro rojê karkirina di mal û çêkirina mafûr û kar di kûrexaneyên kerpûçan û ... cehenemek mezin ji bo jinan li ser dinê afirandiye û para herî zor a karkerên di wan war û karan de penaya xwe bo xwekuştinê(zêdetir xwe şewitandinê) dibin.

Niha jin ji bo rizgarbûn ji hemû zext û givaşên ruhî, siyasî, aborî, civakî û çandî pêwîstî bi saziyên nedewletî yên berevankarê mafê jinan hene da ku di warên cur be cur de mîna cehd û tekoşîn di haydar û zanekirina jinan, rêxistina wan, xurtkirina çanda xwebaweriyê û xebat dijî rewişt û tîtalên xêlekî, eşîregerî û kevneşopên şaş, pêkanîna reform di yasayan de û ... cehd bikin û xebatê dijî newekheviyên civakî, malbatî û yasayî bikin bi bingeh û esas û yekgirtin û yekîtiya xwe ku şert û merca bingehîn ya serkevtinê ye, cehda xurtkirin û pêtir bûna wê bidin

**Jêder: Kovara Agirî, weşana xwendekarên Kurd yên Zanîngeha Zabilê, hejmara 4'an**

**Peyama Kofî Enan, Sekreterê Giştî Yê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî Bi Boneya Roja Cîhanî A Jinan**

# Berpirsyariya xurtkirina wekheviya jin û mêran, li stûyê me hemûyan e ne tenê jinan

Îsal, sala nirxandin û lênihêrîn bi ser programa Konferansa Pîkenê, piştî dehsalekê ye. Îsal saleke girîng di bizava wekheviya regezî û baştir kirina rewşa jinan e. Sala 1995’an jin li Pîkenê civiyan û bi nûneratî ji aliyê mirovahiyê ve, gavek pir girîng avêtin. Di encamê de, ji cîhanê re bi eşkereyî û bi terzekê ku heta wê demê bê mînak bû, eyan bû û derket ku wekheviya regezî ji bo aştî û geşekirinê, hewcehiya bingehîn e.



Di heyama dehsalên borî de, me gelek geşandin û pêşketinên berçav û xuya di zaf waran de dîtine. Hêvî û xwezî bi jiyanê pir baştir bûye. Hejmareke zêdetir ji keçan rû ji xwendina destpêkî kirine. Jin pitir ji her serdemek din, mêjûlê bidestveanîna dahatê ne. Her di vê demê de jî pirsgirêk û arîşeyên nû derketine holê. Kirîn û firotina jinan û zarokan bînin ber çavê xwe, berçavîyek ku wijdanan dihejîne. Mixabin roj li pey rojê xurtir dibe. Yan êrîş birin bo ser jinan di şer û pevçûnên çekdarî de, yan xurt û geşebûna bi xof a nesaxiya Îdz (HIV)ê di nava jinan û bi taybetî jinên ciwan û kêm temen de.

Lê gava ku mirov mêzeyî dehsala borî dike, xalek pitir ji hemûyan, balkêş û zeq dibe, em hîn bûne ku ew kosp û astengên ku dikevine ser rêya jinan, bê çareserî ninin. Em hîn bûne ku kîjan gav karîger û bi bandor e û kîjan gav û cehd û têkoşîn jî bê encam û bê bandor e. Ger em bixwazin vê mîrata dîrokî ku jin di gelek ji civakan de bêpar hiştî ye biguherin, divêt yên ku em hîn bûne di asteke berfirehtir û mezintir de bi kar bînin. Îsal derfeteke girîng û binirx ji bo avêtina van gavane ye. Çunku rêvebirên cîhanê xwe ji bo kombûn û civînê di meha Septamberê de amade dikin ta ku nirxandinekê li ser pêşketinên “Beyannameya hezarê” de bikin ku welatên cîhanê di sala 2000’ê de wekî mînak û berjengek ji bo avakirina cîhanek baştir di sedsala 21’an de, li ser de rêk ketine. Di vê civînê de ez dê daxwazê ji civaka navneteweyî bikim ku ji bîra wan be ku xurt kirina wekheviya regezî tenê li astê jinan de nine, belkî berpirsatiya wê wezîfa li stûyê me hemûyan e.

Niha 60 sal li ser vê ku avakerên Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, li rûpela yekem a destûra vê Rêxistinê têde, yeksanî û wekheviya mafê jin û mêran cih dabûn, derbas dibe. Li vê demê ve vekolînên yek li piştî yekê hînî me kirine ku tu amûr û alavek ji bo geşebûnê, karîgertir ji bihêz kirina jinan nine.

Tu siyasetek din bi vî awayî nikare berhemanîna aborî bibe jor, yan qasê mirin û jinavçûna zarokan kêm bike. Tu siyasetek din bi vê radeyê garantiya baştir kirina xwarin û saxlemiyê, bo mînak berlêgirtin ji nesaxiya Îdzê nake. Tu siyasetek din heta vê qasê ji bo geşandin û geşepêdana derfetên hîndekariyê ji bo nevî û nifşên pêşerojê bi bandor nine. Ez jî bi eşkere û wênekî dibêjim ku tu siyasetek din bi vê radeyê ji berlêgirtin ji şer û cihgirtina aştî û tenahî û tebahiyê piştî şer de, girîng û jêhatî û karîger nine. vêc û berjewendiyên bi kiryar a terxankirina sermayeyê bo jinan herçiqas zaf jî be, dîsan girîngtirîn rastî eve ye ku: Jinan mafê jiyanek pir ji rêz û hurmet û bi dûr ji tirs û nigeranî û serbestî ji ya ku em dixwazin, hene. Di vê Roja Cîhanî a Jinan de, werin em bo careke din sozê bidin ku vê rastiyê di piratîk û bi kiryar nîşan bidin û bi cih bînin.

# Serkavtinên Siyasî Yên Jinên Cîhanê Di Sala 2005'an De




Ajansa nûçeyan ya Asoşêdtidpirês di raporekê de da xuya kirin: Cîhan di sala 2005'an de gewahiyarê(gova û şahid) komek serkevtinên girîng yên siyasî ji bo jinan bûye.

Her ji hilbijartinên yekemîn Serok Komara jin li Afrîqayê heta bi rêveçûna yekemîn hilbijartinê bi pişikdariya dengderên jin di Erebistana Seûdî de. Îraq û Efxanistan şahidê beşdariya jinan di helbijartinan de û cehda wan ji bo bidestveanîna kursiyên Parlemanê bû. Di Lîbriya û Almaniyayê de bo cara yekemîn Serok Komar û Serok Wezîra jin hate ser kar û yekemîn posta siyasî ya welatê xwe bidestve girtin.

Herwiha jinan di bajarê Cede ya Erebistana Seûdî de derfeteke bêwêne bidestveanîn û di rikeberiya hilbijartinê de karîn du kursiyên Desteya Birêvebir ya Bazirganiya vî bajarî bidestve bînin. Di Şîliyê de jî rewş û derfetek jêhatî ji bo hilbijertina yekemîn Serok Komara jin pêk hat.

"Kowîta Ramdas" Seroka Sindoqa Cîhanî ya Jinan ku binka bingehîn ya wê li Sanferansîskoyê dibe û piştevan û alîkarê hemû girûpên siyasî yên jinan di cîhanê de ye got: "Sala 2005'an saleke tejî serkeftin ji bo jinan bûye." Wê herwiha anî ziman 10 salan berî niha me digot: “Em dixwazin yasayek bo piştevanî kirin ji jinan re bihête danîn, lê niha em dibêjin em jinên wiha dixwazin ku xwe yasadaner bin”.

Ji aliyekî din ve Yekîtiya navbera Parlemanan li Jineve da zanîn: Hejmara nûnerên jin di Parlemanên welatên seranserî cîhanê de di sala 2005'an de gihîşte 6960 jinan.Yanî ji sedî 16/1

**Jêder: Malpera "iran-emrooz"**

# Rexne ji Komara Îslamî seba êrîş bo ser civînan



Çalakvanên Mafên Jinan li Tehranê bi hinceta Roj Cîhanî ya Jinan xwenîşandanek lidarxistin. Di encama êrîşa Hêzên Întizamî ji bo belavkirina kombûna, Rêxistina Zêrevan ya Mafê Mirovan Rejîma Îranê bi mifah wergirtin ji tund û tûjiyê bo tepeserkirina kombûna aştîxwazane gunehbar kir.

Li gor gotina pişikdarên vê kombûnê, hêzên Ewlekariyê li hemberî berxwedaniya xelkê ji bo têkdana vê kombûnê, êrîş kirne ser xelkê û ketne lêdan û kutana xelkê pişikdar, bi taybet xatûna **Sîmîn Bêhbehanî**, helbestvana 70 salî.

Rêxistina Zêrevan ya Mafê Mirovan da zanîn ku ji dema hilbijartina Mehmûd Ehmedînejad ji bo posta Serok Komariyê di sala borî de, hêzên Ewlekarî yên Îranê ji bo belavkirin û tepeser kirina kombûnên aştîxwazane, ji tund û tûjiyê mifah standine.

Li gor danezana Rêxistina Zêrevan ya Mafê Mirovan, Wezareta Hundir ya Komara Îslamî, li berê bi çalakvanên mafê mirovan re ragihandibû ku vê kombûnê hilweşînin, lê berpirsiyarên ewlekariyê piştre dan zanîn ku ev kombûn bê fermana fermî hatibû lidarxistin.

**Jêder: BBCPERSIAN.com, 11.03.2006**

# Helbesta Kurdî û bandora wê li ser civakê



**Şerîf Felah(Hêja)**

Dema ku bas ji helbesta Kurdî tê kirin dem û dest laşê mirovên xwedî hest û mirovhez diciniqe û siwarê hestên xeyala wî/ê dike û bi esmanê ramaneke berfireh û di nava peyvên jîn û dildariyê de difire.

Heke em werin û nasnameyekê ji bo helbestê danên ku hêja û jêhatiyê wê be, renge me zêdegotin kiribe, ji ber ku her mirovek ji dîtingeh û têgihîştina xwe ve mêzeyî helbest û pênaseya wê dike. Li gor dîtina min helbest, bizava hestê di welatê xeyalê de ye, helbest di yekem dem de bizavek e dijî ne wekheviyê, alîgirê delalî û xweşikiyê ye, helbest derba herî bedev ya guhartinê ye, helbest ba min ev bêhna tal û şirîn e ku ez hildikişînim, helbest bingeha kûr û qahîm a evînê ye, helbest teyrekî koçber e ku bi bê paseport li cîhanê digere, helbest destpêkeke ne çavnihêr kirî ye.

Helbest seferekî xweş û bi tam e bo herêma dildaran, helbest mêşa hingivîn e bo miştina şîra gulan ku serî li hemû baxçeyekê dide, helbest esmanekî tijî evr e ku baran bi ser cendekê helbestvanê xwedî hest de dibare, helbest şoreşa wijdanê ye li hember zulm û bêdadiyê de.

Li jor me basa helbest û wan çend pênase û dîtingehên cuda kir, emê niha bihêne ser mijara helbesta Kurdî û bandora wê ji derbasbûyî û niha li hember civakê. Em dikarin helbesta Kurdî weke bav û çavkaniya huner û wêjeya Kurdî bi nav bikin, ji ber ku hunera herî kevnar û limêjîn a Kurdî ye.

Metodên helbestê pêka hin taybetmendiyên ku hene weke: tama taybetî li hember metodên din yên wêjeyê, bihagiraniyeke xasmanî pê hatiye dan û bi hegera nebûna hêl û rêbazeke din a pêwendîdar di navbera tex û qatên civakê de, hertim weke ragihandineke bihêz a kulturî di xizmeta gel de bûye û helbestvan jî her gav di qonaxên cur bi cur de weke desthilatdarên herî bihêz di navenda vê çandê de rola xwe lîstine. Her wek ji hemû kesekê re rohn û eşkere ye, gelê Kurd bi dirêjahiya dîrokê zulm û zordariya netewî jê hatiye kirin û di bin lepên dagîrkeran de hatiye perçiqandin, civaka Kurdî jî weke tepeserbûyiyeke neyar bo mana xwe û bidestveanîna mafên xwe bi hemû awayekê û di hemû warekê de cehd û xebat kiriye, ku wisan bû bê guman di civakeke han de her alavek ku di xizmeta wê civakê de be, bi awayekî nerast erkê wê tê diyarî kirin û zaf yasa û pirensîpên ku berê hatine diyarî kirin bi ser de tê sepandin, ku wisan bû helbesta Kurdî ev alave ye ku di xizmeta civaka Kurdî de bûye, bi wateyeke din helbesta Kurdî nekariye di xizmeta helbestbûna xwe de be û bi zimanê helbestê û li gor hunera helbestê û xasmanî yên xwe ve bo me bipeyive. Belkî berevajî û cuda ji vê çandê ku basa xweza û ciwaniya Kurdistanê kiriye bi pesna mirovê Kurdî vehûnandiye û ji aliyeke din ve hergav ku seh bi tirsê kiriye, gelê xwe ji pîlanên cur bi cur ên neyaran haydar kiriye û heta di cihên hewce de gelê xwe hay daye ku dest bidin çekan û berengarî dujmin û dagîrkeran bibin. Em dikarin bibêjin ku helbest di piraniya waran de, cuda ji take tirîbonekê, rola her terze ragihandin û belavokekî din jî lîstiye, çunkî berevanî û zimanê diyaloga wî gelî jî bûye, lewra helbest di derbasbûyî de bo gelê Kurd her bi tenê helbest nebûye, belkî weke alavekî fîzîkî mifah jê hatiye wergirtin û di xizmeta parastin û geşandina netewî de bûye. Di rewş û zirûfeke han de ye ku helbest ji resenatiya helbestê diwerese û derbê ji peykera(pêkhat) wêjeyê bi giştî û helbestê bi taybetî dide.

Her weke me qala wê çendê kir, sitema neteweyî bûye hegera vê çendê ku em di hizr û kiryareke neyar de bijîn, lewra ramana neyar di hizra takê/a Kurd de rola hêzekî hayder dilîze ku bandorê li ser ziman, çand û hemû ew aliyên ku pêwendî bi jiyan û Kurdîniyê ve heye didanê, lewra ew pêl û pêvajoyên nû ku hemû aliyên jiyana mirov bi xwe ve girtine, wêje û çand jî di vê nûbûnê de bêpar ninin û bi taybetî helbest ji hemûyan zêdetir ew nûbûna bi xwe ve girtî ye, lê divêt vê çendê jî bizanin ku helbest ji vê çendê pîroztir e ku dan û standina siyasî pê were kirin, **Bi dirûşm kirina helbestê û bi helbest kirina dirûşman** xisarekî mezin e ji peyker û riha helbestê û dibe hegera vê çendê ku helbest ji xizmeta helbestbûna xwe de nebe û bibe alavek bo gihîştin bi meremên siyasî, divêt helbestvan, nivîskar û wêjevan bi giştî vê rastiyê ku pişkeke herî bihagiran ji deqeke helbestê ji çand û berhem anîna çandî pêk hatiye, lewra heke helbestvanê/a Kurd, aliyên çandî yên helbestê û peyama helbestê berçav negire û soz û ehda çandî nebe, nekariye afirîner be, belkî xwe xapandiye û xwendevan jî sergêj kiriye û herifîner jî dibe.

Helbestvan weke dahênereke/a deq a helbestê, divêt vê çendê bizane ku xala herî girîng a mana çandê ewa ye ku **1.** Bi zimanê xelkê û xwestek û daxwaza dilê xelkê û bi zimanekî îroyîn binivîse. **2.** Taybetî û bo heyameke diyarîkirî nebe.

Mixabn îro wêjeya Kurdî bi giştî û nemaze helbest tevî serhildana ew şîpelên berçav û nû ku civaka me jî bi xwe ve girtiye tevî kirîz û aloziyê berengar bûye. Di vî warî de jî nifşa ciwan berengarî xwe winda kirinê bûye. Divêt em bibêjin ku hin ji ciwanên me di navbera van û wan de asê bûne û kevneşop û nûxwaz ku ji hevdana bajêrvanî û diyardeya cîhanîbûnê ye, bûye kirîz û nesaxiya wêjeyê.

Mamosta **Hêmin** ê helbestvan dibêje: “ Helbest tu car kevin û nû nabe” belkî helbesta baş û xirab heye, îca di her qalib û formekê de be(kilasîk yan nû) girîng nine, ya girîng kakil û mesaja helbestê ye, lê form û naverok du bingehên sereke yên helbestê ne ku ji hev cuda ninin, lê heke helbestvan naverokê gorî rûçik û formê bike, şaş e, helbest divêt lêdana nebza civakê bizane, helbestvan nabe bi hêceta doza ziman û guhertin di ziman de serê xwe û xwendevan gêj bike û kes ji wan fêm neke, helbestvan divêt bizane wezîfa wî/ê çiye û bo kê û bo çi dinivîse?

Doz û şaşiya herî mezin a afirandinê eva ye ku xwendevan jê fêm neke, yek ji hegerên bê xwendevaniya helbestê û dûrketina civakê ji helbestê û sergêjiya xwendevan dizivire bo: **1.** Asoya bîr û ramana helbestvan weke dahênereke/a deq a helbestê. **2.** Zorbûn û bê mifah bûna zêde di warê helbestê de. **3.** Edet û kevneşopên paremayî derheq bi helbestvan di nava civakê de û nêrîna fantaziyayî û selfî a civakê û bîr û hizrên giştî derheq kesayetiya helbestvan. **4.** Asta têgihîştin û ronakbîriya civakê.

Hebestvan bi seh kirin bi wan erkên ku li ser milê wî/ê hene, divêt vê rastiyê jî li berçav bigre ku bi serhildan û geşekirina war û curên din yê wêje û çandê, îdî helbest ew erkên giran û berpirsiyar yên ku li ser milê wê bûn, kêm bûye û hewce nine ku weke caran aliyên çandî yên xwe gorî berjewendiyên siyasî bike û bi pesna kesayetiyan ve bêje û xwe di çarçoveyeke teng û daxistî de zîndanî bike, belkî divêt zêdetir warê çandî û helbestvaniya xwe li berçav bigre hetanî ku weke dengekî cuda û bibandor bo pêşdebirina çand û wêjeya Kurdî xuya û berçav be.

Parastina ziman yek ji wan wezîfan e ku helbestvan divêt li berçav bigre, ziman darek e ku peyv jî çiq û Pelên wê pêk tînin, helbest divêt xwe bide ber tevahiya sîbera wê, heke pel û çiqên wê yên xwar bihêne qetandin, ew dare rût dibe û siya wê ya tejî namîne, lewra ziman bi peyvên nehez û bedev ve ziman e û helbest jî nabe li tu peyvekê vecinîqe.

Dema ku peyvek dikeve ser zimanê xelkê û di kar û barên rojane û jiyana xelkê de rola xwe heye, parek ji dara ziman e û dikare di helbestê de jî bihête bikar anîn û geşe bike. Her tiştek ku di cihê xwe de bimîne û nebizive genî dibe. lewra ziman û helbest bi hev re girêdayî ne û bêyî hev najîn. Mixabin ku helbesta nû a Kurdî îro rastî nesaxiyê hatiye û nesaxiyekî bi xof a wêjeyî tûşî helbestvan û bitaybetî helbestvanên ciwan bûye, serbarê wê nesaxiyê ku ji derve hatiye û nifşa ciwan tûşî sergêjiyê kiriye, êşa hundir jî weke penceşêrê berbûye canê nesax, merema min ew êşa ye ku zor li mêjde ye bi bejn û bala helbesta nû a Farsî ve hatiye gotin, ev pêle bûye nesaxiyek û bazara helbesta nû a Kurdî jî aloz kiriye, cuda ji wê çendê dibêjin ku piraniya helbestvanên ciwan soz û biryar dayîne hev ku li ser yek bingeh û awayî binivîsin û hemû bi yek zimanê helbestê, helbesta binivîsin, peyv û benûştên hev dicûn, ziman û darêtina wan bi yek awayî ye û di yek rewş û zirûfê de bêhnê dikişînin. Her wek em hemû aliyek dizanin di cîhana wêjeyê de, helbestvan yan nivîskarek serkevtî ew kesa/e ye ku xwediyê zimanekî taybet û şêwaz û rêbazeke taybet bi xwe be.

**Jêder: Kovarên Mehabad, Raman, Zirêbar û Awêne**

# REXNEGIRÎ

**ADAR JIYAN**
adarjiyan@mynet.com

Rexne, ligel ku karê herî zor û zehmet e jî, îro her kes bi hêsanî radibe dikeve bin vî barê giran û xwe wekî rexnegir û rexnekar nîşan dide. Bêşik û bênîqaş binbariya rexneyê an karê rexnegiriyê qet ne karekî hêsan e. Û ne kar û barê her kesî ye jî. Carekê divê rexnegir berî her tiştî xwediyê gelek hewim û rewiştên dorfireh û zanistî be ku bikaribe ji bin vî barê giran derbikeve.

Rexne, bûye beniştê devê her kesî. Kî bixwaze heyfa xwe ji kê hilîne an wî/wê li bin guhê erdê bixe, pêşî bi navê rexneyê têkilî wî/wê û ber û berhemên wî/wê dibe û mexsed û mirazê xwe li ser navê rexnegiriyê pêk tîne. Heçku rexne qet ne fersend û destûrdayîna kesên ku bi hestyarî tevbigerin û kîn û xezeba xwe yên rojane bi kerb û hêrs bi ser kesê/a ku jê bi rik e de bibarîne. Çimkî rexnegirî bi xwe karekî pir çetin û lomedar e. Û ew, rasterê bi zanist, zanîn û hişmendiyê ve girêdayî ye. Jixwe rexneya ku xwe nespêre hişmendiyên zanayane û rêbazên zanistî, tu car wekî rexne û rexnegiriyê nayê hesibandin jî.

Gelek caran, du kes pêrgî hevdû dibin, piştî lihevpirsîn û merhebabûnê hema li ser piyan yek ji yê/ya din re dibêje: "Keko (an jî xwişkê) ez ê te hinekî rexne bikim" , "Ez sinc û exlaqê te naecibînim." , "Min ew berhema te qet ne eciband…." û hwd. Carekê ev yek ne rexne ye û pir dûrî ruh û xisletên rexne û rexnegiriyê ye jî. Çimkî bi vî awayî ne kesê/a ku rexne lê tê kirin sûd û fêdeyê ji vê rexneyê werdigire û ne jî kesê/a rexnegir...Her du jî bi gazinc û lome nêzîkî hevdû dibin belê bi xeyd û dilgiranî ji hevdû vediqetin. Ji bo wê mirov nikare vê yekê wekî rexne û rexnegiriyê bi nav bike. Bi rastî ev xislet û taybetmendiyên zanayane, tenê ne ji bo rexne û rexnegiriyê; her wiha ji bo hemû kar û barên ku mirov pê eleqedar dibe jî tiştekî bivênevê ye. Heta ku rexne û rexnegirî rast neyê ravekirin, tu sûd û fêdeya rexneyê nagihîje mirov û civakê. Wekî ku tê zanîn rexne, hîmê bingehîn ê azîneyên zanistî ye. Her wekî din ew wekî rêbazeke sereke ya sererastkirin û tekûzkirina ber û berhemên mirov e jî.

Rexnegirekî/e ku ber û berhemekê an jî liv û tevgerekê binirxîne, divê ku xwediyê hin xislet û taybetiyên rexnegiriyê be jî. Her wekî din jî mirov dikare wekî mînak çend xisletên rexnegiriyê yên din jî bi kurtayî destnîşan bike. Di serî de divê rexnegir hay ji rêbazên rerxnegiriyê hebe û der barê rexne û rexnegiriyê de xwedî zanîn be. Divê rexnegir xwediyê pêzaniyên zanistî be. Divê rexnegir, tişt an jî behrema ku rexne dike, baş binase. Divê rexnegir babet û xisûsiyeta tişt an jî berhemê baş bizanibe û der heqê jêder, awa û şêwaza wê de xwedî agahî be. Divê rexnegir bizanibe çi dike an ji bo çi rexne dike. Divê rexnegir tiştê ku rexne dike an dinirxîne ji nêzîk ve binase. Divê rexnegir li dewsa tiştê ku rexne dike tiştekî baştir û tekûztir deyne. Divê rexnegir bi pêşniyar vebijerkên xwe re, kesê/a ku rexne dike, diltêr û tetmîn bike. Divê rexnegir hêz û qawetê bide kesê/a ku rexne dike û şaşiyên wî/wê pê bide hisandin û pejirandin. Divê rexnegir û hem jî kesa ku rexne lê tê kirin sûd û fêdeyê ji wê rexneyê werbigire. Divê rexnegir rexneya xwe bi zimanekî xweş û şêrîn derbibire. Divê rexnegir, kesê/a ku rexne dike qet neêşîne… û hwd.



Heke ji min bê pirsîn, gelo tiştê herî zehmet çi ye? Bêşik ez ê bibêjim rexne ye. Belê dîsa ji min bê pirsîn, gelo tiştê herî hêsan çi ye? Bêfikar ez ê dîsa bibêjim rexne ye. Lewre gelek kes tiştên gelekî zor û zehmet hêsan digirin û nirx û qîmeta wî tiştî dixin ber lingan. Bo nimûne; ligel ku di nav çeşn û cûreyên wêje yê de karê herî zehmet kelbeng helbestkarî ye jî, em dêhna xwe didinê ku gelek kes, pêşî bi helbestê dest bi wî karê xwe yî xama dikin û xwe wekî helbesvan dihesibînin. Rexne jî, ligel ku karê herî giran û zehmet e jî, her kes bi piştrastî radibe xwe li rexnegiriyê girêdide û xwe wekî rexnekar nîşan dide. Îcar bi rastî û mixabin ne helbestkariya me bi navê xwe re û ne jî navê rexnegiriya me bi xwe re li hev e.

---

Kaniya Helbestan

## Yan mêrek çê yan çiyayek asê

**Latîf Epozdemir**

Di sedsala bîsta de mê
çiya li pişta min he ne
barê giran dikşînim
pişta min li çiya ne.
Van azarên sedan sala
dane pişta min çiya
li ber bayê
kaş di bim ez
li çiyayê pişta min.
Yan mêrek çê
ku tune bî
çiyayek asê
min pişta xwe
daye çiyê
li çiyaye pişta min.
Ez çiya didim pişta xwe
berê min li asoyê çiya
tu kes nıne bide erdê pişta min.
Lewra ku li çiyaye pişta min
ez pişta xwe didim çiya
li pişta min in çiya...

## Dilketî

Tim dinya jî pê dizane
tu carî, bêdeng nema me
derdê min gotin bi helbesta hozana,
Ewqas ku êdî helbest westiyan
av sekinî, li ro û çema
agir vemirîn li serê çiya.

Dil bi kel û girîn e hemû rojan
dengê min e tevlî bayê
belav dibe ser dinyayê,
Denganek, ji pal û zinaran radibin
li ser min dikşînin cewr û cefayê.

Dar tazî man li daristanê
Roj çû ava li asîman
Şev bû tarî wek qetran...

Ez hatim ber derê te
ketim tor û bextê te,
Mala min nekî wêran
nevan bi min nekin seyran.

Gul şewitîn li gulistan
Deşt peritîn li beristan
Xwîn bûye ax di goristan.

Rengê min e rengê agir,
para min e dar û kevir
Tu nêçîrvan ez jî nêçîr,
ez dest vala, tu jî bi tîr.

Ax şerm dike bin pîyê min
Berf dewam e ser serê min
Giryan û şîn ber derê min....

## Serjêr:

1. Ji aliyê Amerîkayê ve bi mîkroba siyahzexm (birîna reş) dihate naskirin.
2. Dûrî.
3. Eemel- Navê şîrketekê ye li Swîsê de- Kurtkiriya peyva Pêşmerge.
4. Zor xelîz.
5. Di polên seretayiyê de ew jî hebû- Kesayetiyekî navdar e.
6. Berevajî tê wateya rihê pênûsê- Berevajî tê wateya tişta herî girîng di rojnamê de.
7. Heke **J** bê zêde kirin tê wateya hêr.
8. Di Turkî de dibêjne Hespan- Nexweşiyek e- Saziya herî mezin a cîhanê.
9. Firqeyek Şîeyan peyrewê Ebdulahibnê Seba.
10. Paşayekî Mad bû.

## Çeprast:

1. Serokê SIA'ê.
2. Saziya ewlekariyê a Îsraîlê.
3. Nîşaneya heyrîmanê ye - Heke **R** bê zêde kirin, tê wateya bêhewselebûnê - Heywanek e.
4. Hov – Derd - Cotkar mifahê ji wê jî werdigirin.
5. Berevajiya wê kurtkiriya hêzekê ye - Dibêjne zarokan, heke kur be.
6. Av li ser heye - Di Farsî de bo şêweya giriyê tê.
7. Rêberê şoreşa Çînê - Reh û rîşeya royiştin di Soranî de- Bêdengî.
8. Ew bi Farsî - Berevajî tê wateya navê heftînameyek Ermenî- Di Farsî de tê wateya"hestî"!?.
9. Heke A bê zêdekirin tê wateya elind.
10. Hakimek bû di hikûmeta Sefariyan de.




## Bersiva Xaçepirsa hejmara 34

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | ■ | N | A | P | E (2) | L | O | N | ■ | ■ |
| 2 | H | ■ | V | A | R | Î | N | ■ | E | M (5) |
| 3 | Î | N | ■ | R | A | M | ■ | E | R | A |
| 4 | M | Û | S | ■ | | ■ | O | M | E | R |
| 5 | A | Ş (3) | Û | R | ■ | ■ | L | Î | B | Î |
| 6 | L | A | M | Î | ■ | ■ | Î | N | A | K |
| 7 | A | T | E | N | ■ | S | ■ | E | N | Û |
| 8 | Y | Ê | R (1) | ■ | S | E (4) | N | ■ | E (6) | R |
| 9 | A | L | ■ | K | I | R | Î | Z | ■ | Î |
| 10 | ■ | ■ | K | A | M | Ê | R | Û | N | ■ |

Peyva veşartî: R (1) E (2) Ş (3) E (4) M (5) E (6)

# Xelatên Oskarê yên 2006'an

Êvariya roja 05.03.2006'an di rê û resmeke çandî a mezin de li bajarê Losancolisê, **Akadîmiya Amerîkî ji bo çand û zanista sînemayê**, di daxuyaniyekê de xelata herî baş a fîlma Oskar ya sala 2006'an pêşkêşî fîlma **Lihavdanê** kir**.** Pol Hacîz derhêner û nivîskarê sinariyoya vê fîlmê bas ji jiyan û serpêhatiya çend kesan diket ku xwediyê tixm û etnîkekî cuda ne û di bajarê Losancolisê de dijîn, herwiha derhênerê vê fîlmê ronahiyê dixe ser wê demargîriya ku di fîlmê de û di encama ji hevdana tixmî ve çê dibe.

Hêjayî gotinê ye ku ew fîlme cuda ji xelata herî baş a fîlmê, 3'ê xelatên din yên Oskarê di warê, baştirîn montaj, baştirîn deq û baştirîn arîkarê sinarîst de wergirt.

Her di vê Festîvalê de çendîn hunermend û fîlmên din bi awayên cur bi cur hatine xelat kirin ku emê di jêr de qala van bikin.

- Fîlma "Çiyayê Birokbar", derhênana "Ang lî" weke fîlma dûyemîn a Festîvalê
- "Ang lî" weke derhênerê herî baş hate naskirin.
- "Larî Makmorterî û Diyana Osana" weke baştirîn sinarîstê fîlma "Çiyayê Birokbak"
- "Costafo Santola" weke muzîkvanê herî baş yê fîlma" Çiyayê Birokbak"
- "Fîlîp Sîmor Hofman" weke Ekterê herî herî baş di fîlma "Kapot" de
- Xatûna "Rês Wîzerspon" weke baştirîn ektera jin di fîlma "Walktheline" de
- Fîlma "Pêşkevtina Împirator" derhênana "Lok Cakiye" yê



Feransî weke baştirîn fîlma di warê dekomêntê de

- Fîlma "Tisotsi" a Rojavaya Afrîqa weke baştirîn fîlm di warê "bînayî" de
- Fîlma "Kîng Kong" weke baştirîn fîlm di warê deng û montaja deng de
- Fîlma "Bîranînên Keça Gîşayek" wekw baştirîn fîlm di warê rêveberiya hunerî, cil û berg, teknîk û wênegirtinê de
- Xelata baştirîn makyaj ji aliyê koma fîlma "Sermestiyên Narîna" hate wergirtin

Hêjayî gotinê ye ku Festîvala Oskarê ya 2006'an bi pişikdariya zêdetir ji 3300 ekterên sînemayî û hunerî û ... yên cîhanî bi awayekî rasterast û di zêdetir ji 100 welatên cîhanê de dihate nîşan dan.

**Jêder: " Kurdistanî Nwê", hejmar 3916**

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci. php

**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE
**E - Mail:**
**rojnama_agiri@yahoo.com**
**agiri2003@hotmail.com**

# Simkoyê canemerg û Herîra bê wêne

Mirina di ciwanî û lawîniyê de, ew jî mirinek piştî 4 salan berxwedanî tevî êş û azarên nesaxiya giran ya Penceşêrê, ne tenê bo nesaxek mehkûm bûyî bi canemergbûnê, ji ber ku ji bo kes û kar û hevalan jî bûyereke pir tal û nexweş e, xasmanî ger ew kes jî yadigarê Şehîdekî rêya azadiya neteweya Kurd û bi xwe jî şoreşvanekî dirêjederê rêya bavê xwe û Kadroyekî jêhat û dilsoz be, û 10 sal ji 25 salên temenê xwe di çeperên pir şanazî yên PDK Îranê bihorandibe.


Simkoyê canemerg û Herîra bê wêne

Mixabin, şeva pêncşemî, 11'ê Reşemeya 1384(02.03.2006)'an, **Simko Agoşî**, kurê Şehîd **Birahîm Agoşî** xelkê gundê Kanîkilî ya Pîranşarê xatira xwe li jianê xwest û dilê hemû dost û heval û kes û karan jî daxdar kir. Simko di temenek pir kêm de bû Pêşmerge û tevlî refên PDK Îranê bû. Li destpêkê di hêza Qendîl a Partiyê de mijûlê erkê Pêşmergayetiyê bû û ji ber jêhatî û çelengî û xwe elimandinê bû Kadroyê siyasî û berpirsiyariyên cur bi cur di warê hînkirin, ewlekarî û Bêsîmê li Navenda 3'ê a Kurdistanê de li stû girtin û karî serkevtiyane û serbilindane wan erkane birêve bibe.

Simkoyê canemerg havîna îsal serbarê nesaxiyê tevî Herîra (keça Pêşmergeyekî kevnar yê partiyê) evîndar û hez kiriya çendîn saliya xwe jiyana hevpar pêk anî. Her çend ku Simko berî zewicînê ji ber nexweşiya xwe, daxwaz ji Herîrê kiribû ku ew dawî bi vê evîndariya çendîn salî bînin, lê evîndara wî nehêla ku Simko vê hêvî û xweziyê bibe bin axê û bi destpêkirina jiyana hevpar, mîdala mezinahî û însanetiyê kire skura xwe .

**"Rojnama Kurdistan"**

Bi vê hincetê em wekî malbata Agirî serxweşiyê ji Herîr, malbat û kes û karên Simko dikin û xwe di vê xemê de bi şirîk dizanin.

# YJDK Îranê Roja Cîhanî a Jinan pîroz kir



Yekîtiya Jinên Demokrat a Kurdistana Îranê di daxuyaniyek çapemeniyê de, 8'ê Marsê, Roja Cîhanî a Jinan pîroz kir. Di daxuyaniyê de YJDK Îranê pîrozbahiyên xwe pêşkêşî hemû jinên cîhanê û bi taybet yên Kurdistanê dike û tekezê li ser giringiya vê rojê, weke roja tevlîbûna deng, reng, xebat, gazî û nalîna jinên çewisandî di seranserê cîhanê û herwiha perçiqandina jinan di qonaxên cur bi cur yên jiyanê de dike.

Daxuyanî dide zanîn ku serbarê gavên çalak û biwêr û herwiha destkevtên binirx yên jinan di qonaxa îro de, lê pirsa jinan çareser nebûye û bûye bi pirs û mijara sereke ya cîhanî. Daxuyaniya YJDK Îranê nirxandinê li ser doza jinan di welatên pêşketî û paremayî de dike. Paşan lênihêrînekê bi ser rewşa jinên Îranê û Kurdistanê di hemû warên civakî, siyasî, aborî, çandî û kulturî û xebatê de dike û serbarê rabihoriyek geş di hemû bizavên dijî zordarî û dîktatoriyê de, lê hêj ji destpêkîtirîn mafên mirovan yên xwe bêpar in û bê hurmetî û tund û tûjî dijî wan di xurt bûnê de ye.

YJDK Îranê di rapora xwe de herwiha tîne ziman ku serbarê reform û guhartinan di Rojhilata navîn de, lê Komara Îslamî her bi vê ramanê hizra kevn û paremayî di hemû warên siyasî, civakî û çandî û ... bi taybetî mêzeyî jinê dike û nemaze piştî hatine ser kar a Mehmûd Ehmedînejad, tepeserkirin û bê edaletî û berteng kirina xwast û daxwazên jinan roj li pey roj pitir û xûrtir dibe.

Piştre YJDK Îranê di daxuyaniya xwe de halwesta jinên Îranê û Kurdistanê di heyamê 27 sal desthilatdariya Komara Îslamî de bi erênî û pozetîv dinirxîne ku her tim pêşengên bizavên azadîxwaziyê bûne û tu car jî radestî bîr û bawerên kevn û paremayî yên Komara Îslamî nebûne û rola jinan bi taybetî yên Kurdistanê di xebat û têkoşînê de bilid dihesibîne ku li henberî tepeserî, zext û givaşan de teslîm nebûne û serbarê zulma neteweyî, li ser xwast û mafên xwe jî bê deng nemane.



Karîkator: Malpera Cagle.com